# BUROYA KURDÎ

## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 88 - Tebax 2012**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 www.kurdishbureau.be
kurdishbureau@scarlet.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## *TÎRMEH 2012*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**PARLEMENTERA KURD LEYLA ZANA**

***Rasthatin bi serokwezîrê tirk re***



***Di 30 Hezîran 2012 de***, parlementera kurd a serbixwe, Leyla Zana, rastî serokwezîrê tirk Recep Tayyıp Erdoğan, bi amadebûna cîgirê serokwezîr Beşir Ataly, hat. Civîn katjmêrek (saetek) û nîv ajot. Dema ku derket, wê got ku rasthatin baş derbas bû û ku Erdoğan « fular »ek (hibrî) pêşkêşî wê kir.

***Konfêrans li parlementa Tirkiyê***
***Di 01 Tîrmeh 2012 de***, Banû Zana konfêranseke çapemeniyê li parlementa Tirkiyê kir. Wê tê de got ku wê bi Erdoğan re ajotina (dewamkirin) giftûgoyan (munaqeşe), perwerdeya bi zimanê kurdî û zîndana malê ji bo Abdullah Öcalan, serokê PKKê, giftûgo kirin. Û wê got jî ku ev gav bi amadebûna hemî aliyan, di hewayekî aşîtiyê de, bê kirin û ku dewleta tirkî dibêje ku divê ku berê PKK şerr rawestîne û piştre ewê leşker ê xwe rawestîne. Lê Zana got ku ew tişt ne rêalîst e. Wê ji serokwezîr re got ku dewleta tirkî divê ku bexişandin (efû) ji malbatên qurbanên sîvîl ên qirkirina Roboskî bixwaze. Li dawiyê, wê got ku Erdoğan bi sabir guhdariya wê kir û ku gotinên wî piştî civînê nîşan da ku ew samîmî ye û ku dixwaze ku pirsê bi dyalogê çare bike.
*(Çapemeniya kurdî, 01.07.2012)*

***Li Parlementa Ewropî***
Ew li Parlementa Ewropî li ser rasthatina xwe bi serokwezîrê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, re peyivî û got ku wî bi sabreke mezzin guhdariya wê kir.
*(netkurd.com, avestakurd.net, rudaw.net, 11.07.2012)*

***Piştgiriya ronakbîrên kurd***
Ronakbîr, nivîskar, hunermend û ramyarên (siyasî) kurd, ji bo rasthatina wê bi serokwezîrê tirk re, piştgiriya Leyla Zana kir.
*(avestakurd.net, netkurd.com, 14.07., rizgari.org, 15.07.2012)*

***Cezayê zîndanê hat cemidandin***
Cezayê du sal zîndan, ku Banû Zana ji bo axaftineke ku wê di 2007 de kiri bû, hat cemidandin, bi şartê ku ew 3 sal heman (eynî) tawanê (sûc) neke.
*(rudaw.net, 17.07.2012)*

**DADGEHEK FERMANA RAGIRTINA 30 SERBZAN DIDE**
Di çarçeva vekolînekê (ankêt) li ser « sîxuriya leşkerî » (casûsiya leşkerî), ku ji aliyê dozkarê (prokuror) komarê yê Izmirê hat dest pê kirin, de dadgehê fermana derxistina (avêtina) 30 serbazan (esker), li 15 bajaran, da. Di vê tevgerê de, 26 gûmanbar (kesên bi şubhe) hatin bin çav kirin û piştre birin Serleşkeriya Izmirê. Ji berê, di çarçeva heman dozê de, 45 kes, ku ji wan 13 serbaz, hati bûn ragirtin. Di 13 Hezîran de jî, 19 serbaz, ku ji wan 2 xanenişîn (teqa'ud), hati bûn ragirtin.
*(netkurd.com, 01.07.2012)*

**BÎRANÎNA SERHILDANA 1925**
Partiyên ramyariyî (siyasî) yên kurdî, BDP, KADEP, HAK-PAR û OSP, û 19 rêxistinên civaka sîvîl, li Diyarbekirê kuştina Şêx Seîd û 16 hogirên wî, piştî serhildana 1925, pêk anî.
*(peyamner.com, 01.07.2012)*

**PIRTÛKEKE MATÊMATÎKÊ TÊ WERGERANDIN KURDÎ**
Kurdekî Batmanê, Yusuf Soyvural, mamosteyê matêmatîk û fîzîkê li zanîngeha Colemêrgê (Hakkari) ye. Wî pirtûka pileya (derece) duyemîn a matêmatîkê wergerand zimanê kurdî. Wî kari bû vî karî bi saya handana (teşwîq) rêktorê vê zanîngehê bike. Soyvural « master »ekê li zanîngeha Yüzüncü jî amade dike. Wî dixwest ku lêgerînekê li ser zimanê kurdî bike, lê ji sedema astengên huqûqî wî nikari bû wê bike.
*(rudaw.net, 02.07.2012)*

**DESTPÊKIRINA DOZA « KCK »ê**
***Di 02 Tîrmeh 2012 de***, dadgeha taybetî ya 15mîn a cezayên giran a Istanbulê dest bi doza rêxistina « KCK »ê kir. 193 kes, ku ji wan 132 li zîndanê ne, bi « *birêvebirina rêxistineke têrrorîst a çekdar* » hatine tawanbar (bi sûc) kirin. Ji wan, Banû Buşra Ersanlı, endama encumena destûrê ya partiya kurdî BDPê, û rojnamevan Ragip Zarakoğlu. Dadgeh 38 sal zîndan ji bo Banû Ersanlı û di navbera 7 sal û nîv û 15 sal ji bo Zarakoğlu dixwaze.
*(netkurd.com, 02.07.2012)*

**VEKOLÎNEK LI SER TABLOYA ÎLANEKE BI KURDÎ**
***Di 03 Tîrmeh 2012 de***, wezîrê hundir ê tirk, Naim Şahin, fermana destpêkirina vekolînekê li ser tabloya îlanekê, ku li ketina Diyarbekirê hatiye danîn, da. Li ser vê tabloyê, xweşhatina mêvanan bi sê zimanan, tirkî, kurdî û suryanî, « Hûn bi xêr hatin bajarê me », hatiye nivîsîn. Şaredar Abdullah Demirbaş riswa (protêsto) kir û got ku nuha hukûmeta tirkî hînkirina bijare ya zimanê kurdî dipejirîne (qebûl dike), lê hebûna tabloyekê bi sê zimanan li ketina bajêr napejirîne. Û wî anî bîran ku ev tablo ji zû de li vira ye. *(peyamner.com, 04.07.2012)*

**JI 2009 DE, 6.500 KES HATINE GIRTIN**
Serokê Rêxistina Mafên Mirov (IHD), Öztürk Türkdoğan, got ku ji 3 salan de, dewletê siyaseta xwe li hemberî Kurdan guherandiye, ku ew wan dipejirîne (qebûl dike), lê tevgera siyasî ya kurdî qedexe dike. Û wî got jî ku giftûgoyên di navbera her du aliyan de rawestiyan.
*(rudaw.net, peyamner.com, 07.07.2012)*

**MÎTÎNGEK TÊ QEDEXE KIRIN**
***Di 09 Tîrmeh 2012 de***, parêzgarê (walî) Diyarbekirê mîtîngeke KCKê di 14 Tîrmehê de qedexe kir.
*(rudaw.net, 09.07.2012)*

***Di 14 Tîrmeh de***, mîtîngeke mezzin li Diyarbekirê, li bin duruşma (slogan) « Ji bo azadiyê berxwedana demokratîk », bû. Polîs bi tundî êrîşî bi hezaran xwepêşandiyên ku ji hemî navçeyên Kurdistanê hati bûn kir. Bi dehan kes ji her du aliyan, ku j iwan 3 parlementerên partiya BDPê, birîndar bûn. Lingê parlementer Pervin Buldan hat şikestin. Nêzîkî 85 kes hatin ragirtin. Dozkarê Komarê dest bi vekolînekê kir.

Partiyên ramyariyî yên kurdî, HAK-PAR, KADEP û OSP, û rêxistinên civaka sîvîl, weka Rêxistina Mafên Mirov li Diyarbekirê, piştgiriya xwe ji partiya BDPê re nîşan da û tundiya (hişkbûn) polis riswa kir.
*(netkurd.com, avestakurd.net, 14.07.; rudaw.net, peyamner.com, 16.07.2012)*

***Di 15 Tîrmeh de***, nêzîkî 1.000 kes li parka Sumerê, li Diyarbekirê, ji bo riswakirina tundiya polis, civiyan. Çend berpirsiyarên partiya kurdî BDPê peyivîn.
*(peyamner.com, 15.07.2012)*

Lêgerîn li gelek xaniyan ji aliyê polîsê antî-têrrorîst li Diyarbekirê hatin kirin. 13 kes hatin ragirtin. Bi ser de jî, şaredarê Pîranê, Mustafa Uygurner, hat ragirtin.
*(peyamner.com, 18.07.2012)*

Serokê Odeya Bazarganî û Pîşesaziyê (sina'et), Remzi Can; serokê Pîşesazên Başûrê Rojhilatê (Günsiad), Şah Ismail Bedirhanoğlu; seroka Jinên Karsaz, Jin Nevin, û gelek karsazên din çûn seredana partiya BDPê li Diyarbekirê. Bedirhanoğlu bi navê şandê (dêlêgasyon) peyivî û got ku bi qedexekirina vê mîtîngê dewlet şaşiyeke mezzin kir. Seroka şaxa Diyarbekirê ya partiya BDPê, Zübeyde Zümrüt, got ku ji salek bêtir de, dewlet wan nahêle ku çalakiyan bikin, ji bo ku derketina milyonek Kurd li Diyarbekirê wê ditirsîne. Û wê got jî ku partiya wê ewê tucar liberxwedana dêmokratîk ranewestîne.
*(rudaw.net, 20.07.2012)*

**DI 6 MEHÊN ŞERR DE, 178 MIRÎ Û 123 BIRÎNDAR**

Li gora rappora Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê, ji 6 mehan de, di şerrê li dijî PKKê de 178 kes mirin. Ji wan, 122 çekdarên PKKê û 56 endamên ewlehiyê (emniyyet) yên tirk. Bi ser de jî, 123 serbaz û polîs birîndar bûn.
*(netkurd.com, rudaw.net, 10.07.2012)*

**BELAVBÛNA LEŞKER LI GUNDAN**

Leşkerê tirkî belav bû gelek gundên bajarê Tatwanê, li nêzîkî sînorê iraqî. Ev yek piştî birîndarbûna 3 serbazên tirk di şerrê PKKê de. Serbazan ketin û derketina ji van gundan qedexe kirin, û bi vî awayî rûniştevanên wan ji xwedîkirina dewaran (heywanan) û xebata li zeviyên (erd) xwe bêpar (mehrûm) kirin.
*(netkurd.com, 11.07.2012)*

**15 POLÎS TÊN BIRÎNDAR KIRIN**

***Di 14 Tîrmeh 2012 de***, PKKê êrîşî bingeheke polîs li Edremitê, li nêzîkî Wanê, kir. 15 polîs birîndar bûn.
*(peyamner.com, 14.07.2012)*

**QEDEXEKIRINA NAVÊN KURDÎ YÊN CIYÊN VEKIRÎ**

Li gora ajansa FiratNewsê, navên kurdî yên 19 navendên çandî û parkan hatin qedexe kirin. Ev yek ji sedema qedexekirina fermî (resmî) ya zimanê kurdî û nebûna hin tîpan, weka « Q, X, W », di zimanê tirkî de. Kurdan bixwe van navên kurdî danî bû ciyê yên kevn ên tirkî.
*(aknews.com, 21.07. ; rudaw.net, 22.07.2012)*

**KUJERÊN 17.000 KURDAN DIVÊ KU BÊN CEZA KIRIN**

Rêxistina Mafên Mirov çalakiyek li parka Koşuyolu, ji bibîranîna kuştina 17.000 Kurdan di salên 1990 de, pêk anî. Serokê wê, Raci Bilici, got ku ev kuştinên ne zelal ji aliyê dewletê hati bûn kirin, ku ev kujer (qatil) hîn jî azad digerrin û ku divê ku hukûmet wan ceza bike û ji gelê kurd bexişandinê (efû) bixwaze.
*(peyamner.com, 21.07.2012)*

**6.000 SERBAZ HIŞŞÊ XWE HUNDA KIR**

Li gora rojnameya tirkî Sabahê, Rêxistina Ewlehiya Civakî (Sosyal Güvenlik Kurumu) daxuyand (îlan kir) ku di 28 salan de, 6.000 serbaz (esker) hişşê xwe hunda kir yan jî pirsên (problêm) wan ên psîkolojîk ên giran, ji sedema şerrê leşkerê tirkî li dijî PKKê, bûn. Ji aliyekî din jî, Rêxistina Serbazên Mirî û Rêxistina Malbatên Şehîdan xwest ku leşker navê rûmetê (şeref) "Gazi" û mûçe (maaş) bide wan. *(rudaw.net, 22.07.2012)*

**SEREDANA SEROKÊ ENCUMENA MAFÊN MIROV YA PARLEMENTA KURDISTANA IRAQÊ**

Serokê encumenta mafên mirov a Parlementa Kurdistana Iraqê, Salar Mehmûd, çû seredana şaredarê Diyarbekirê, Osman Baydemir, û jê re pêşveçûnên Kurdistana Iraqê, nemaze di warê mafên mirov de, gotin. Baydemir dilxweşbûna xwe ji rewşa nuha ya Kurdistana Sûriyê nîşan da.
*(peyamner.com, 23.07.2012)*

**DEH MEH ZÎNDAN JI BO BERPIRSIYAREKÎ "BDP"ê**

Dadgehek Mazhar Zümrüt, endamê encumena partiya kurdî BDPê, bi 10 meh zîndan tawanbar (mehkûm) kir. Ew bi gotina "Mîrza Öcalan" (bi tirkî : Sayın Öcalan) û bi pesindana "gêrîlla"yan, di kongreya 2mîn a beşa Elazîzê ya BDPê de, hatiye tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 23.07.2012)*

**NIJADKUJIYEKE ÇANDÎ**

Alîkarê berê yê seroka partiya desthilatê AKPê, Dengir Mir Firat (kurd), ji rojnama tirkî Radikalê re got ku siyaseta assîmîlasyona Kurdan di dema "Ittihad ve Terakki" de dest pê kir û bi Kemalîsmê (Ata-Türk, bavê Tirkan) ajot (dewam kir). Û wî got jî ku ev siyaset hîn jî heye û navê wê kir "nijadkujiya çandî" (jênosîda kulturî), li gel gavên girîng ku hukûmetê avêtine û got ku divê ku ew pirsa kurdî û ya PKKê tev li hev neke.
*(peyamner.com, 24.07.2012)*

**BANGA 763 RÊXISTINAN LI DIYARBEKIRÊ**

763 rêxistinên civaka sîvîl, ku ji wan şaxa Diyarbekirê ya KCDê (Kongreya Civaka Dêmokratîk) û Rêxistina Mafên Mirov, bangî hukûmeta tirkî kir ku tecrîdê ji ser Abdullah Öcalan, serokê PKKê ku li zîndanê ye, rake û gavan ji bo çarekirina pirsa kurdî bavêje.
*(rudaw.net, peyamner.com, 25.07.2012)*

**DAGÎRKIRINA TURKISH AIRLINES LI VYÊNNA**

***Di 27 Tîrmeh 2012 de***, komeke cuhanên kurd buroyên şirketa firokeyên tirkî, Turkish Airlines, li Vyênna, li Otrîşê (Avusturya, Nêmsa) dagîr (işgal) kir, ji bo riswakirina tecrîda li ser serokê PKKê, Abdullah Öcalan. Piştî katjmêrekê (saetek), karmendekî şirketê gaza hêstirîn avêt ser wan. Polîs karmend û berpirsiyarê komê bin çav kirin.
*(rudaw.net, 28.07.2012)*

# KURDISTANA IRAQÊ

## RÊXISTINA XANIMÊN KURDISTANÊ



Di konfêranseke çapemeniyê li Hewlêrê de, Rêxistina Xanimên Karsaz ên Kurdistanê avabûna xwe daxuyand. Ew ji 16 jinan pêk hatiye û destûra fermî di 07 Sibat 2012 de ji wezareta hundir a Kurdistanê stendiye. Bîrê (fikr) avakirina wê dema ku 5 jinên kurd li Qatarê beşdar bû bûn semposyuma jinên karsaz ên Rojhilata Navîn, ji 17 heta 19 Gulan 2011 (li bultena me N° 75 binêre), dest pê kir. Seroka vê rêxistinê, Ferda Cemil Paşa (foto, li çep) got ku li cihanê jinên karsaz ku lobby ji bo welatê xwe dikin hene û ku ew jî dixwazin ku Kurdistanê li derve binimînin (temsîl bikin). Û wê got jî ku jinên kurd pirr hişyar û xurt in.
*(rudaw.net, 01.07.2012)*

## LI SADIYÊ KURD TÊN TÊRROR KIRIN

Rûniştevanekî kurd ê Sadiyê, li Bakurê parêzgeha Diyala, yek ji navçeyên erebkirî yên Kurdistanê ji 1975 de, daxuyand ku xelk nema diwêre derkeve ji bo ku heşînayiyan bikirre. *“Ev der weka Kandahar e !”* (li Avxanistanê), wî got. Kurd tê de nameyên tehdîdê ji komên têrrorîst ên islamî, weka Dewleta Islamî û El-Qaide, distînin. Hin ji fermanên wan qedexekirina pîroziyan, firotina alkolê, kişandina fotoyan yan derketina jinan bê ku serê xwe bigirin, in. Di 2008 de, dema ku rûniştevanên kurd û malên wan bû bûn amanca van komên çekdar, pêşmerge diviya bûn ku jê derkevin. Amadebûna polîsê iraqî qet alîkariya van malbatan ne kir. Ev kom pere ji xwediyên xwaringehan (rêstoran) û stasyonên benzînê distînin ji bo ku destûr (izn) bidin wan ku kar bikin.
*(rudaw.net, 08.07.2012)*

## KURDISTAN PÊTROL DIŞÎNE TIRKIYÊ

Rawêjkarê (muşawir) wezareta kaniyên xwezayî (tabîî) yê Kurdistanê, Sîrwan Ebû Bekir, daxuyand ku Kurdistan dest bi şandina pêtrolê ji Tirkiyê re kir.
*(Çapemeniya kurdî, 08 û 09.07.2012)*

## KURDEKÎ ÎRANÊ HUNDA BÛYE

Fêdêrasyona Rêxistinên Ne Hukûmî li Kurdistana Iraqê “NGO” ji hukûmeta kurdî xwest ku tavil (pirr zû) dest bi vekolînekê li ser Mawlud Afand, ku di 08 Hezîran 2012 de li Suleymaniyê hunda bûye, bike. Afand Kurdekî Îranê ku ji 2003 de li Kurdistana Iraqê pena (iltica) bûye ye. Ew berpirsiyarê kovareke lêgerînê li ser pêwendiyên hevrayî di navbera çarenûsa (qeder) Kurdan û Israîliyan de ye. Ev kovar Kurdên Cihû ku li Israîlê dijîn han dide (teşwîq dike) ku vegerin welatê xwe, Kurdistana Iraqê (Kurdên Cihû ji aliyê partiya Baas di 1951 de hati bûn qewirandin Israîlê) (li bultena me N° 87 binêre). Karmendên vê kovarê û gelek rojnamevanên kurd bawer dikin ku Afand ji aliyê servîsên dizzî yên îranî hatiye revandin. Konsulxana îranî li Hewlêrê ev yek inkar kir.
*(peyamner.com, 10.07.2012)*

## SERJIMÊRIYÊN UN’ê LI SER KURDISTANÊ

***Di 08 Tîrmeh 2012 de***, hukûmeta Kurdistana Iraqê ji bo giftûgokirina serjimêriyên (statîstîk) rêxistinên UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) yên li ser pirsên civakî li Kurdistanê civiya : rêjeyên (nisbet) bêkarî, nexwendin, nexweşî, tundiya li dijî zarok û jinan ; asta (sewiye) servîsên hukûmî, weka av, êlêktrîk û hawîrdorê (jîngeh).

Serokwezîrê kurd, Nêçîrvan Berzanî, li vê civînê got ku ev serjimêrî hebûna pêşveçûnê di hemî van waran de nîşan didin, lê ku ev yek têr nake û ku divê ku hemî wezaret bixebitin ku Kurdistan bigihêje standardên navneteweyî.
*(avestakurd.net, 10.07.2012)*

## ÊRÎŞÊN TÊRRORÎST LI NAVÇEYÊN EREBKIRÎ YÊN KURDISTANÊ

***Di 12, 13, 18, 23 û 24 Tîrmeh 2012 de***, êrîşên têrrorîst li Kerkûk, Dubiz û Tuzxurmatû bûn. Bi giştî, 27 kes mirin û 5 birîndar bûn.
*(Çapemeniya kurdî)*

**SEREDANA WEZÎRA ÎRLANDÎ YA PÊWENDIYÊN DERVE**

***Di 16 Tîrmeh 2012 de***, wezîra pêwendiyên derve ya Îrlanda Bakur, Arlin Fotser, çû seredana serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî. Piştre, wê lihevkirinek bi hukûmeta Kurdistanê re, li ser xurtkirina pêwendiyên dualiyî di warên berhemanîn (investment), bazarganî, perwere, perwerdeya bilind, çandin, geşt (tûrîsm) … de, wajo (imza) kir.

*(peyamner.com, netkurd.com, aknews.com, 17.07.2012)*

**HÎNKIRINA KURDÎ LI DERVEYÎ KURDISTANÊ**

Li tevayiya Iraqê, zimanê kurdî li polên (sinif, klas) 4mîn û 5mîn ên dibistanên navîn tê hîn kirin. Lê, li gora destûra iraqî, divê ku ew li hemî astan (sewiye) bê hîn kirin, ji bo ku li Iraqê, li kêleka erebî, zimanê kurdî yê 2mîn e. Birêvebirê giştî yê hînkirina zimanê kurdî li wezareta iraqî ya perwerdê, Huseyn Caf, got ku projeyek di vî warî de hat pêşkêş kirin.

*(rudaw.net, rizgari.org, 17.07.2012)*

**48 BENDAVÊN AVÎ LI KURDISTANÊ**

Birêvebirê giştî yê bendavan (baraj, sed) û berhevkirina avê, endaz (muhendis) Ekrem Resûl, daxuyand ku nuha 13 bendavên avî tên ava kirin û ku lêgerînên li ser avakirina 27 bendavên din di rê de ne. Kurdistan erdeke ku bi av (rûbarên Dicle û Firat), pêtrol û gazê gelek dewlemen e.

*(netkurd.com, 18.07.2012)*

**SEROKÊ AMERÎKÎ BERSÎVA SEROKWEZÎRÊ IRAQÎ DIDE**

Serokê amerîkî Barak Obama bersîv da nameya serokwezîrê iraqî Nûrî El-Malikî, ya li ser nerazîbûna wî ji kontratên pêtrolê ku ji aliyê hukûmeta Kurdistana Iraqê hatine wajo (imza) kirin (kontratên bi şirketên amerîkî û yên din re. Li bultena me ya buhurî, N° 87, binêre). Obama jê re got ku şirketên amerîkî azad in ku bi Kurdistanê re kar bikin û ku Amerîka tecrube dike ku Iraq û Kurdistan zagoneke (qanûn) nuh li ser pêtrol û gazê derxînin.

*(peyamner.com, nefel.com, 25.07.2012)*

Li gora destûra iraqî, her herêmek mafê wê heye ku pêtrolê li bal xwe derxîne, lê divê ku hatinên (kar) wê biçin hukûmeta fêdêral. Piştre, her herêm rêjeyek (nisbet, %) ji buceya giştî distîne. Kurdistan mafê wê heye ku 17% ji vê bucê bistîne.

*(Buroya Kurdî)*

**KONTRAT BI ŞIRKETA PÊTROLÎ « CHEVRON » RE**

Li gel pirsên (problêm) giran di navbera hukûmeta iraqî li Bexdadê û ya Kurdistanê li Hewlêrê, hukûmeta Kurdistanê kontratek bi şirketa 2mîn a mezzin a merîkî « Chevron » re, li ser lêgerîna kaniyên pêtrolê, bi hevkariya şirketa ostralî PMV AG, wajo (imza) kir. Ji berê jî, kontrateke weha bi Exxon Mobil re hati bû wajo kirin. Careke din, serokwezîrê iraqî, Nûrî El-Malikî, nerazîbûna xwe nîşan da.

*(peyamner.com, rudaw.net, avestakurd.net, 20 û 25.07.2012)*

**SEREDANA RAWÊJKARÊ AMERÎKÎ JI BO EWLEHIYÊ**

Serok Mesûd Berzanî pêşwaziya rawêjkarê (muşawir) cîgirê serokê amerîkî ji bo karên ewlehiyê (emniyyet), Tony Blinkin, û şanda ku pê re bû, kir. Her du alî li ser borana (krîz) ramyariyî (siyasî) li Iraqê, pevçûnên di navbera hukûmeta iraqî û ya Kurdistanê de û tecrubeyên ku ji bo çarekirina wan li gora destûra iraqî giftûgo kirin. Mîrza Blinkin ji Mîrza Berzanî re giftûgoyên ku wî li Bexdadê kirin gotin.

*(avestakurd.net, 20.07., peyamner.com, 21.07.2012)*

**GIFTÛGO LI SER TUNDIYA MALBATÎ**

Serokê polis, kesên fermî (resmî) ku bi karên dadmendiyî (ên edaletê) xerîk (mijûl) dibin û karkerên civakî bi rawêjkarên (muşawir) Yekîtiya Ewropî li Hewlêrê civiyan, ji bo ku zagona (qanûn) li dijî tundiya (şiddet) malbatî giftûgo bikin.

Di Hezîran 2011 de, parlementa Kurdistanê bi yekdengî zagona li ser tundiya malbatî pejirandi bû (qebûl kiri bû). Tê de 10 bend hene û hemî celebên tundiya malbatî weka tawan (cinayet, curm) dibîne. Û ew dixwaze jî ku dadgeheke (mehkeme) taybetî ji bo vî karî li piraniya bajarên Kurdistanê bên danîn.

Dadmendekî (hakim) taybetî (xusûsî) di vî warî de, Serdar Ezîz, par daxuyand ku wî 31 doz (da'wa) stendin û ku nîvê wan hatin çare kirin. Tawanbaran (kesên bi sûc) cezayên girtinê yên di navbera 6 mehan û salekê de stendin.

*(peyamner.com, 23.07.2012)*

**14.000 QURBANÊN MÎNAN**

Berpirsiyarekî hukûmeta Kurdistanê daxuyand ku heta nuha ji 14.000 kes bêtir ji sedema mînan (lexm) (ku di dema partiya iraqî Baas de hati bûn danîn) birîndar bûn yan mirin. Û wî got jî ku heta nuha 20% ji axa Kurdisanê ji wan hatiye paqij kirin.

*(netkurd.com, 28.07.2012)*

**110.000 SERBAZÊN IRAQÎ LI SÎNORÊN KURDISTANÊ**

***Di 28 Tîrmeh 2012 de***, nêzîkî 110.000 serbazên (esker) iraqî bi dirêjayiya 60 km çûn ber bi navçeyên erebkirî yên Kurdistana Iraqê û sînorê Kurdistana Iraqê bi yê Kurdistana Sûriyê re : Zumar, Pişt Xabûr … Hukûmeta Kurdistana Iraqê tavil (pirr zû) liviya û jimarke mezzin ji pêşmergan sand. Heta nuha, her du leşker li hemberî

hev rawestiyane, lê hîn tu pevçûneke çekdarî ne bûye. Lê, pevçûna devkî hîn jî dajo (dewam dike). Serokwezîrê iraqî, Nûrî El-Malikî, daxuyand ku amanca vê tevgerê parastina sînorên iraqî ji tundiya ku li Sûriyê dibe ye !

***Di 30 Tîrmeh de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, ji bo giftûgokirina vê pirsê, civîneke fireh bi partiyên ramyariyî yên kurdî re kir. Li dawiyê, 4 biryar hatin stendin : 1- Peytkirina (tesdîq) helwesta hevrayî ya Kurdan û parastina bidestxitinên gelê Kurdistanê. 2- Çarekirina pirsên ramyariyî ne bi hêzê, lê bi bicîanîna destûrê û bi dyalogê. 3- Peytkirina biratiya kurdî, erebî û yên din, weka bingeha sereke ya desthilatê li Iraqê. 4- Ji desthilatan û ji ramana tevane (xelk) ya iraqî xwestina ku ew rola xwe di parastina dêmokrasiyê û sazendeyan de bilîzin û karekî hevrayî bikin.

***Di 30 Tîrmehê de*** jî, encumena pêşmergan li parlementa Kurdistanê çû Zumar û Rabî'a.

***Di 31 Tîrmeh de***, wezîrê pêşmergan, Cafer Mustafa, çû seredana pêşmergan li Zumar û Rabî'a, ji bo ku ji nêzîk de rewşê nas bike û moralê leşkerê Kurdistanê bilind bike.
*(Çapemeniya kurdî, 29-31.07.2012)*

**VLADIMIR PUTIN MESÛD BERZANÎ VEDIXWÎNE RÛSYA**
***Di 31 Tîrmeh 2012 de***, nimînendeyê (temsîlcî) taybetî yê serokê rûs Vladimir Putin ji bo karên Rojhilata Navîn, Michael Bogdanov, çû seredana serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, û vexwendineke (dawet) fermî ya serok Putin ku biçe seredana Rûsya da wî.
*(avestakurd.net, 31.07.2012)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

**ÎRANIYEK HUKMÊ ÎDAMÊ DISTÎNE JI BO KU BÛYE FILLE**
***Di 09 Tîrmeh 2012 de***, berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Victoria Nuland, bangî desthilatên îranî kir ku Yûsuf Nadi Xanî, Îraniyekî ku bûye fille, bi dar ve nekin (daneleqînin).

Di 2010 de, wî hukmê îdamê stendi bû. Lê ev biryar hat birin dadgeha hawarê. Amerîka, Brîtanya Mezzin, Almanya û Fransa gelek caran bang ji bo nekuştina Xanî kirin.
*(rudaw.net, 10.07.2012)*

**AMERÎKA AZADKIRINA GIRTIYEKÎ KURD Ê NAVDAR DIXWAZE**
Berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Victoria Nuland, di bangeke nivîskî de azadkirina girtiyê kurd ê navdar, Muhammed Sadîq Kabûdwend, ku ji 26 Gulan 2012 de mangirtina (grêv) birçîbûnê dike, xwest (li bultenên me yên buhurî binêre). Kabûdwend avakerê Rêxistina Mafên Mirov li Kurdistanê û berpirsiyarê kovara Peyamê Merdom e. Di 2008 de, ew bi 11 sal zîndan hat tawanbar kirin. Human Rights Watch û Amnesty International jî ji bo azadkirina wî xebitîn.
*(rudaw.net, 19.07.2012)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

**KURD CIVÎNEKE DIJBERIYA SÛRÎ LI MISRÊ BOYKOT DIKIN**
***Di 02 û 03 Tîrmeh 2012 de***, dijberiya (muxalefet) sûrî li Qahirê, li bin serokatiya Lîga Erebî, civiya. 250 nimînendeyên dijberiyên sûrî yên cihê û hin wezîrên ereb ên karên derve beşdarî civînê bûn. Berpirsiyarê pêwendiyên derve yê Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS), Ebdul-Kerîm Beşşar, daxuyand ku Kurdan ev konfêrans boykot kir, ji bo ku Encumena Neteweyî ya Sûrî (dijberiya erebî) ne pejirand (qebûl ne kir) ku mafên Kurdan di daxuyaniya dawîn de binivîse.
*(aknews.com, avestakurd.net, netkurd.com, 04.07; nefel.com, 05.07; kurdwatch.org, 16.07.2012)*

**XWEPÊŞANDANÊN KURDAN**
***Di 03, 06, 13 û 20 Tîrmeh 2012 de***, xwepêşandan (meşîn) li bajarên cihê yên Kurdistanê û li taxên kurdî yên Şam û Helebê bûn.
*(Çapemeniya kurdî)*

**RAGIRTIN Û KUŞTINÊN KURDAN**

***Di 20 Hezîran 2012 de***, servîsên dizzî yên sûrî serbazê (esker) kurd Hozan Zeyn El-Abidîn, dema ku wî tecrube dikir ku bireve Kurdistana Iraqê, ragirt. Nuha ew li zîndana leşkerî ya Qamişlî ye.

*(kurdwatch.org, 15.07.2012)* ***Di 01 Tîrmeh de***, hêzên ezmanî yên sûrî ne hişt ku Nesreddîn Ibrahîm, sekreterê Partiya Dêmokrat a Kurdî li Sûriyê, û berpirsiyarên Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê li Şamê li firokê siwar bibin, ji bo ku beşdar bibin civîna dijberiya sûrî li Qahirê (li jor binêre), û ji wan re got ku ew nikarin ji Sûriyê derkevin.
*(avestakurd.net, 05.07 ; kurdwatch.org, 09.07.2012)*

***Di 13 Tîrmeh de***, êvarê, zilamên çekdar ên nenas li Qamişlî ramyarekî kurd, Cemîl Umer, ku bi navê « Bavê Adil » hatiye nas kirin, revand. Dema ku ew vedigeriya mala xwe, êrîşker agir berda wî û ew bir ciyekî nenas.
*(avestakurd.net, 15.07.2012)*

***Di 18 Tîrmeh de***, kurdekî cuhan li Der'a, di dema pevçûnên di navbera leşkerê sûrî û leşkerê azad de, hat kuştin.
*(rudaw.net, 29.07.2012)*

***Di 23 Tîrmeh de***, di dema pevçûnên li Darayya de, leşkerê sûrî bi dehan kes, ku ji wan endamên Leşkerê Azad ê Sûrî, ragirtin. Piştî çend katjmêran (saet), wê 13 ji van kesên girtî, ku j iwan Nêçîrvan Ferhad El-Quramî (endamê Leşkerê Azad) û Şivan Suleyman El-Quramî, kuştin.
*(kurdwatch.org, 29.07.2012)*

***Di 26 Tîrmeh de***, li Helebê 3 Kurd hatin kuştin û 2 jî birîndar kirin. Ev yek dema ku ew li xwarin û pêwîstiyên din ji bo Kurdên ku pena bû bûn (iltica) taxa kurdî Şêx Meqsûd û ji şerrê di navbera leşkerê azad ê sûrî (muxalefet) û hêzên rejîmê reviya bûn digerriyan. Ji bo bersîvdayîna vê yekê, çekdarên partiya kurdî PYD « YPG » 6 serbazên rejîmê kuştin.
*(peyamner.com, rudaw.net, netkurd.com, aknews.com, 26.07, avestakurd.net, 26 û 27.07.2012)*

***Di 28 Tîrmeh de***, 3 jinên kurd, ku yek ji wan 70 salî bû, di dema bombekirinên xurt ên Helebê de hatin kuştin.
*(avestakurd.net, 29.07.2012)*

## « PYD » KURDEKÎ DIREVÎNE Û ÊŞKENCE DIKE

***Di 08 Tîrmeh 2012 de***, çekdarên partiya kurdî PYDê (baskê sûrî yê PKKê) Dr. Niyazî Hebeş, endamê « Behara Kurdî », li hemberî mala wî li Helebê revand. Heta êvarê, ew li avahiyeke nenaskirî hat hiştin û li wê derê gelek hat êşkence kirin. Ew bawer dike ku ev yek ji bo hişdariya (ixtar) endamên koma wî hat kirin.
*Kurdwatch.org, 31.07.2012)*

## PIŞTGIRIYA KURDISTANA IRAQÊ JI KURDÊN SÛRIYÊ RE

***Serokê Kurdistana Iraqê rastî dijberiya kurdî ya Sûriyê tê***



***Di 07 Tîrmeh 2012 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, rastî hev-serokê partiya PYDê (baskê sûrî yê PKKê), Salih Muslim, û hev-serokên Encumena Gel (rêxistineke PYDê), Sînem Rustem û Abdusselam Ehmed, hat ji bo giftûgokirina rewşa Kurdistana Sûriyê. Berzanî li ser yekîtiya Kurdan li vê perça Kurdistanê israr kir. Piştre, PYD û Encumena Gel rastî Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS, ku tê de hemî partiyên siyasî ku ne PKK ne hene) hatin. Wan li ser van xalan li hev kir : 1- Avakirina encumeneke hevrayî, ji bo çarekirina pirsên ku hîn mane. 2- Destûrnedana bûyerên çekdarî li bajar û navçeyên kurdî. 3- Parastina bajarên kurdî bi hev re û bê çek. 4- Peyitandina (tesdîq kirin) lihevkirina ku berê çend hefteyan bi amadebûna buroya serok Berzanî hati bû wajo (imza) kirin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 07.07 ; netkurd.com, 10.07.2012)*

***Avakirina Heyeta Bilind a Kurdî***

***Di 11 Tîrmeh de***, piştî rasthatinên cihê ku me li jor gotin, her sê partî û rêxistinên kurdî peymaneke bi navê « Peymana Hewlêrê » wajo (imza) kir û li Hewlêrê Heyeta Bilind a Kurdên Sûriyê ava kir. Rola wê amadekirin û pêkanîna siyasetek û tevgereke hevrayî ji bo Kurdên Sûriyê : 1- Danîna mêkanîsmekê ji bo bicîanîna Peymana Hewlêrê. 2- Heyeta Bilind a Kurdî ji 10 kesan, ku ji wan 5 ji Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) û 5 ji Encumena Gel (rêxistina PYDê), pêk tê. 3- Avakirina 3 encumenan ji bo çavdêrîkirina (kontrol) çalakiyên li derve : a) encumenta pêwendiyên neteweyî û yên derve. b) encumena xizmet û çalakiyên derve, ku şaxên wê li hemî bajar, qeza û gundan hebin. C) encumena ewlehiyê (emniyyet) û şaxên wê, ji bo parastina hemî bajar, qeza û gundan. 4- rawestandina şerrê agahdariyê di nav partiyan de. 5- qedexekirina bikara-

nîna tundiyê (şiddet). 6- rûmeta (hurmet) Peymana Hewlêrê ku mêkanîsma kar nîşan dide. 7- bicîanîna destnîşandana encumenên ku li jor hatine gotin du hefte ji mêjuya (tarîx) wajokirina peymanê de.
PYD, ku weka hevkara hukûmeta sûrî tê nas kirin, divê ku xwe jê dûr bixe û bi awakî çalak (aktîf) bi Kurdên din re kar bike. (Ev « hevkarî » bi hukûmeta sûrî re bitenê taktîk e, ji bo rakirina (nemayîna) partiyên din ên kurdî û bûna hêza kurdî ya tenê ku hukm bike).

***Di 24 Tîrmeh de***, ev Heyeta Bilind a Kurdî cardin civiya û 10 endamên xwe nîşan kirin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 25.07.2012)*

***Di 29 Tîrmeh de***, bi sedhezaran Kurd li herderê Kurdistanê û li taxên kurdî yên Şam û Helebê xwe pêşan da (meşiyan), ji bo pîrozkirina avakirina Heyeta Bilind a Kurdên Sûriyê.
*(avestakurd.net, 30.07, rudaw.net, 31.07.2012)*



***Li Hewlêrê wajokirina lihevkirina bi Encumena Aborî ya Kurdên Sûriyê***

***Di 15 Tîrmeh 2012 de***, lihevkirineke hevkariyê di navbera Heyeta Bilind a Kurdî û Encumena Aborî (iqtisadî, êkonomîk) a Kurdên Sûriyê (EAKS) de li Hewlêrê hat wajo kirin. Eva dawîn ji bo bicîanîna projeyan û baştirkirina rewşa aborî li gund û bajarên kurdî li Sûriyê dixebite.*(avestakurd.net, 16.07.2012)*

***Tedrîbên serbazên kurd ên cuhan***
Di hevpeyvîneke kanala têlêvîzyona El-Cezîre, beşa ingilîzî, de serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, cara yekemîn got ku Kurdistana Iraqê serbazên (esker) kurd ên cuhan ên Sûriyê, ku ji leşker reviyane vê perçeya Kurdistanê, tedrîb dike (perwerde). Û wî got jî ku ev xort ewê neyên vegerandin, lê amade kirin ji bo roja ku ewê leşkerê sûrî xwe bikişîne û valayiyek çêbibe.
*(peyamner.com, rudaw.net, 23.07.2012)*

**PIŞTGIRIYA KURDÊN TIRKIYÊ**
Encumenek bi navê « Encumena Piştgiriya Kurdên Sûriyê » ji aliyê partiyên ramyariyî yên kurdî, HAK-PAR, KADEP, OSEP, û rêxistinên Koma Diyalogê Dicle Firat, Înisyatîfa Azadî, Koma Demokratên Şoreşger, hat ava kirin. Wê konfêranseke çapemeniyê li Diyarbekirê kir û tê de helwesta dijberiya sûrî (ya ne kurdî) û ya welatên weka Erebistana Seûdî, Tirkiyê û Qatarê li hemberî Kurdan, û civîna dijberiya sûrî li Qahirê (li jor binêre) rexne kirin. *(rizgari.org, 08.07.2012)*

Serokê partiya BDPê, Selahettin Demirtaş, got ku divê ku Tirkiye mercên (şart) Kurdên Sûriyê têbigihêje û mafên wan nas bike.
*(peyamner.com, avestakurd.net, 21.07.2012)*

Encumena birêvebir a KCKê (PKK) dilxweşiya xwe ji avakirina Hesteya Bilind a Kurdên Sûriyê nîşan da.
*(avestakurd.net, rizgari.org, 25.07.2012)*

**BANGA GIRTIYEKÎ KURD Ê ÎRANÊ**
Girtiyê kurd ê Îranê yê navdar, Muhammed Siddîq Kabûdwend (li jor binêre), ji zîndana Evînê li Tehranê bangî Kurdên Sûriyê kir ku li dijî hevdu dernekevin û ji bo fêdêralîsmê li Kurdistana Sûriyê bixebitin.
*(peyamner.com, 10.07.2012)*

**BANGA RONAKBÎRÊN KURD ÊN SÛRIYÊ**
***Di 10 Tîrmeh 2012 de***, ji 90 kesahiyên kurd bêtir, ku ji wan kesahiyên ramyariyî (siyasî), ronakbîr û berpirsiyarên NGO (rêxistinên ne hukûmî), li Qamişlî civiyan û daxuyaniyeke hevrayî kir. Wan tê de berpirsiyariya hemî partiyên ramyariyî û çalakvanên kurd di pevçûnên wan ên ku nayên pejirandin (qebûl kirin) de nîşan da.
*(peyamner.com, 11.07.2012)*

**EL-CEZÎRE NAVÊN EREBKIRÎ YÊN NAVÇEYÊN KURDÎ AŞKERE DIKE**
***Di 14 Tîrmeh 2012 de***, kanala têlêvîzyonê ya erebî El-Cezîre navên erebkirî yên bajar û qezayên Kurdistana Sûriyê gotin : Li jêr çend nimûne :

| ***Kurdî*** | ***Erebî*** |
|---|---|
| **Kobanî** | **Eyn El-Arab** (Kaniya Ereban !) |
| **Dêrik** | **Malikiyye** |
| **Serê Kaniyê** | **Re's El-Eyn** |
| **Çil Axa** | **Jewadiyye** |
| **Taxa Kurdan** (li Şamê) | **Rukn El-Dîn** (Quncika Olê !) |

*(avestakurd.net, 15.07.2012)*

**VÊTO LI ENCUMENA EWLEHIYÊ YA UNê**
***Di 19 Tîrmeh 2012 de***, piştî êrîşên mezzin li Şamê û mirina çend berpirsiyarên bilind ên sûrî, encumena ewlehiyê ya UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) civiya, lê Rûsya û Çînê vêtoya xwe danî ! Ev cara 3mîn e ku ev her du welat vêtoya xwe li ser Sûriyê bi kar tînin.
*(peyamner.com, avestakurd.net, 20.07.2012)*

**9.000 SÛRÎ PENA DIBIN KURDISTANA IRAQÊ**
Birêvebirê servîsa koçberiyê (immigration) ya parêzgeha Duhokê daxuyand (îlan kir) ku heta nuha 9.000 penaberên (multecî) sûrî hatine Kurdistanê. Hukûmeta vê Herêmê alîkariyên cihê, bi hevkariya rêxistinên mirovî, dide wan, çi Kurd çi Ereb.

Hukûmeta navendî ya Bexdadê got ku ji sedema têrnekirina imkanan û nebûna ewlehiyê (emniyet) li Iraqê, ew nikare alîkariya penaberên sûrî bike.
*(peyamner.com, 22.07.2012)*

**KURD Û EREB DIREVIN KURDISTANA SÛRIYÊ**
Piştî bombekirinên xurt ên Şam û Helebê, jimareke mezzin ji rûniştevanên kurd û ereb ên van her du bajaran, û yên Hums, Hama û Ezzazê, ber bi Kurdistana Sûriyê reviyan. Li Kurdistanê rewş gelek giran e : xwarin û êlêktrîk kêm in, jiyan beha ye, birçîbûn dest pê kiriye …
*(avestakurd.net, 31.07.2012)*

**BOMBEKIRINA TAXÊN KURDÎ LI ŞAM Û HELEBÊ**
***Di 21 Tîrmeh 2012 de***, firokeyên sûrî dest bi bombekirina Taxa Kurdî ya Şamê (Rukn El-Dîn) kir. Rûniştevan ber bi taxeke din a kurdî, « Zorava », li nêzîkî Şamê, reviyan û tê de pêşwaziya wan hat kirin. Hin ji wan kari bûn birevin Qamişlî, li Kurdistana Sûriyê. Li Helebê, ji derveyî bombekirinan, pevçûn di navbera serbazan (esker) û cuhanên taxa kurdî ya Eşrefiyyê derket. 4 cuhan birîndar bûn.
*(rizgari.org, 22.07, avestakurd.net, 23.07.2012)*

**TIRKIYE LEŞKERÊ XWE LI SÎNOR BELAV DIKE**
Leşkerê tirkî li sînorê Kurdistana Tirkiye-Sûriyê, di navbera Nuseybîn û Qamişlî de, belav kir.
*(avestakurd.net, 22.07.2012)*

**TIRKIYE JI DEWLETEKE KURDÎ DITIRSE**
***Di 19 Tîrmeh 2012 de***, li dawiya civîna encumena ewlehiyê ya UNê li ser Sûriyê, serokwezîrê tirk, Recep Tayyıp Erdoğan, ji rojnamevanên Kanal 24 re daxuyand ku ewê Tirkiye avakirina Kurdistaneke serbixwe li Sûriyê nepejirîne û ku PYD hevalbenda rêxistina têrrorîst PKKê ye. Û wî got jî ku ewê wezîrê karên derve, Ahmet Davutoğlu, bişîne Kurdistana Iraqê ji bo ku tê de pirsan giftûgo bike. Piştî vê yekê, serokê partiya tirkî ya dijberiyê (muxalefet) CHPê, Kılıçdaroğlu, bi tundî hukûmeta partiya AKPê rexne kir û got ku Kurd Israîleke nuh, Kurdistaneke yekbûyî, ava dikin. Û wî serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, jî rexne kir û got ku ew hemî van tiştan dizane.
*(avestakurd.net, 25.07., rudaw.net, 26.07.2012)*

Serokê Encumena Neteweyî ya Sûrî, Abdulbasit Seyda (kurd), rastî wezîrê tirk ê karên derve, Ahmet Davutoğlu, hat. Evê dawîn nerazîbûna xwe ji belavbûna hêzên PKK-PYDê li sînorê Kurdistana Sûriyê got. Seyda bersîva wî da û got ku hukûmeta sûrî Kurdistana Sûriyê ji PYDê re hiştiye, lê ku Kurd vê yekê napejirînin û ku gelek ji wan piştgiriya PKKê nakin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 27.07.2012)*

**TIRKIYE DERIYÊN XWE YÊN GUMRUKÎ DIGIRE**
Wezîrê tirk ê bazarganî û gumrukan, Heyai Yazıcı, daxuyand ku ji sedema şerrê sîvîl li Sûriyê, Tirkiyê biryar stend ku hemî deriyên xwe yên gumrukî yên li sînorê sûrî bigire.
*(peyamner.com, avestakurd.net, 25.07.2012)*

**LEŞKERÊ SÛRÎ YÊ AZAD HIŞYARIYA « PYD »ê DIKE**
Leşkerê azad ê sûrî (yê dijberiyê) daxuyaniyek belav kir û tê de got ku ew hişyarî (ixtar) dide partiya kurdî « PYD »ê (baskê sûrî yê PKKê) ku bi rejîma sûrî re hevkariyê neke.
*(avestakurd.net, 23.07.2012)*

**PYD ALA XWE BILIND DIKE**
Sekreterê Partiya Dêmokrat a Kurd li Sûriyê û berpirsiyarê pêwendiyên derve yê Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê, Ebdulkerîm Beşşar, got ku divê ku partiya PYDê ala xwe hilnegire (partiyên din ên kurdî bitenê alên kurdî û sûrî bilind dikin). Û wî got jî ku PYD iddia dike ku wê hin bajarên piçûk ên Kurdistanê "azad kirine", lê ku ev ne rast e, ji bo ku hêzên ewlehiyê yên rejîma sûrî hîn jî tê de ne û wan bixwe hin idareyên sîvîl teslîmî PYDê kirine (ji bo ku dubendî di navbera Kurdan de derxîne).
*(rudaw.net, 25.07.2012)*

**22.095 MIRÎ LI SÛRIYÊ**
Li gora texmînên dawîn ên çalakvanên sûrî, ji destpêka serhildanê heta 27.07.2012, 22.095 kes hatin kuştin. Li jêr jimarên li her ciyî :

Hums 7.141, Idlib 3.584, Derdorên Şamê 2.627, Hama 2.584, Der'a 2.135, Dêr El-Zor 1.251, Heleb 1.203, Şam 704, Laziqiyye 428, Quneytira 193, Hesiçê (li sînorê Kurdistana Sûriyê) 126, Swêda 14.
*(avestakurd.net, 31.07.2012)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**11 CAR ŞAMPYONÊ CIHANÊ YÊ PÎTZA Û 2 CAR Ê BOKSÊ LI AMERÎKA**

Hakkı Akdeniz Kurdekî Tirkiyê ye. Di salên 1990 de çû Kanada û di 2000 de Amerîka. Ew ji gundê xwe yê nêzîkî Farqînê, li navçeya Diyarbekirê, reviya bû, ji bo ku leşkerê tirkî ew şewitandi bû. Heta nuha, ew 11 car bûye şampyonê cihanê yê pîtza, ku ji wan 8 car li Amerîka û 3 car li cihanê. Di 2004 û 2005 de, wî 2 nîşanên zêrîn di boks de li New Yorkê stendi bûn û bû bû şampyonê cihanê yê 3mîn ê Golden Gloves (Leppikên Zêrîn). Ji sedema şikestina parsuyeke wî, ew neçar bû bû ku dev ji boksê berde û xwe bi pîtza xerîk (mijûl) bike.

Heta nuha, Akdeniz 68 car beşdar bûye bernameyên têlêvîzyonê, ku ji wan CNN. Û fotoyên wî bi stêrkên navdar ên Hollywoodê jî hene.

Akdeniz 17 sal nikari bû biçe Tirkiyê ji bo seredana malbata xwe. Loma, wan par hevdu li Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, dît. Ew bîr dike (difikire) ku dibistaneke pîtza li Hewlêrê veke û tê de cuhanan bigihîne.
*(rudaw.net, 02.07.2012)*

**PÊŞANGEHEKE FOTOYAN LI TEHRANÊ**

Wênekêşê (fotograf) kurd Hîwa Paşayî pêşangeheke "fotomedya" li Galeriya Hunera Rojhilata Navîn, li Tehranê, pêk anî. Ew tê de cill û toreyên (adet) taybetî yên Kurdên Kelhorê, li navçeya Kirmanşahê, li Başûrê Kurdistana Îranê, dide nasîn. Jimareke girîng ji hunermend û sempatîzanên kurd beşdarî vekirinê bûn.
*(rudaw.net, 07.07.2012)*

**BAŞTIRÎN ÇÊKERÊ KURTEFÎLMAN LI BELJÎKA**

Kovara flamanî ya navdar, Knack Focus, fîlmçêkerê kurd Sehîm Umer Xelîfe "Baştirîn fîlmçêkerê kurtefîlman li Beljîka" bi nav kir. Di vê kovarê de hevpeyvînek bi Xelîfe re heye û fotoya wî li ser berga wê ye. Ji bo vê babetê, meriv dikare li vê malperê binêre :
http://knack.be/weekblad/magazines/focusknack/04-07-2012
*(avestakurd.net, 10.07.2012)*

Sehîm Xelîfe gelek xelatên navneteweyî stendine (Buroya Kurdî).

**SÊ GORÊN KEVNAR LI KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 12 Tîrmeh 2012 de***, birêvebirê şûnwarên parêzgeha Duhokê, Dr. Hesen Ehmed, di konfêranseke çapemeniyê de daxuyand ku 3 gorên ku ji 6.000 salan de hene li Dêrikê, li Rojhilata çemê Diclê, li parêzgeha Duhokê hatin dîtin.
*(netkurd.com, 16.07.2012)*

**PÊŞANGEHEKE FOTOYAN LI KURDISTANA IRAQÊ**

Wênekêş (fotograf) Muhammed Kifrî fotoyên xwe yên nuh ên li ser xwezaya (tabîet) Kurdistanê li Parka Şanederê, li Hewlêrê, pêşan dan. Ev pêşangeha wî ya 13mîn li Kurdistanê ye. Wî 75 pêşangehên din jî li derve pêk anîne. Kifrî dibêje ku amanca wî ew bû ku ji cihanê re nîşan bide ku xwezaya Kurdistanê ji ciyên din ên gelek xweş li cihanê ne kêmtir e.
*(peyamner.com, 12.07.2012)*

**PÊŞANGEHEKE FOTOYAN LI LUBNANÊ**

***Ji 14 heta 16 Tîrmeh 2012***, li Beyrûtê pêşangeheke fotoyan li ser serok Mustafa Berzanî hat vekirin. Tê de 110 fotoyên wênekêşê fransî François Lavate, ku hogiriya Berzanî li mêjû (tarîx) û ciyên cihê kiri bû, hene. Fîlmeke belgeyî ya sala 1963 de jî hat nîşan dan.

Pêşangeh ji aliyê Civata Xeyrî ya Kurdî-Lubnanî û şirketa Zhanar ji bo berhemanînê (investment), ku li Hewlêrê ye, hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 16.07.2012)*

**KURDEK DIBE ENDAMÊ YEKÎTIYA NIVÎSKARÊN KAZAKSTANÊ**

Yekîtiya Nivîskarên Kazakstanê ji bo hilbijartina endamên xwe yên nuh civiya. Ji 100 namzedan (candidats), wê 9, ku ji wan Kurdek, Hesen Hecîsilêman, bijartin. Hemî yên din Kazak bûn. Li vî welatî 130 gel û hindikayî dijîn. Ji derveyî gelek çalakiyên çandî, Hesen Hecîsileman 5 pirtûkên ku li Alma-Ata hatin weşandin nivîsîne.
*(rudaw.net, 15.07.2012)*

BRUSSELS HOOFDSTEDELIJK GEWEST VLAAMSE GEMEENSCHAPSCOMMISSIE

FÉDÉRATION WALLONIE-BRUXELLES

Ev bulten, bi alîkariya Vlaamse Gemeenschapscommissie (VGC) û Fédération Wallonie-Bruxelles, bi kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî hatiye weşandin.